Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 102
31'ê Çileya Pêşîn a 2008
Buha: 150 Tûmen

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

**Pîrozbahî**

Bi henceta Cejna Kirîsmesê, cejna jidayîkbûna Mesîh, em pîrozbahiyê ji hemû pêrewên ola Mesîh bi giştî û nemaze Mesîhiyên Îran û Kurdistanê dikin. Em hêvîdar in ev cejne û hemû cejn û hilkevtên din ên pîroz bibin sedema xêr û xweşî û sedemek bona rêzgirtin ji baweriyên olî ên tev civatên xelkê Kurdistanê.

**Partiya Demokrat Ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî - 23.12.2008**

# BİRYARNAMEYEKE NÛ Lİ DOR BİNPÊKİRİNA MAFÊ MİROVAN Dİ ÎRANÊ DE



Civata Giştî ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî bi pejirandina biryarnameyekê, nigeraniya xwe li dor binpêkirina eşkere û berfireh ya mafê mirovan di Îranê de da xuyakirin. Biryarnameya han di 63' hemîn civîna Koma Giştî a RNY'ê di roja 18.12.2008'an, bi 69 dengên erê û 54 dengê NA hate pejirandin, 57 welatan jî dengê bêalî dan. Biryarname ji Îranê dixwaze ku girtin û îşkenceyan, îdamkirina nûciwanan, kevirbaran, serkut û çewisandina çalakên mafê jinan, cudahîdananên li dijî kêmaniyên olî û neteweyî bi dawî bîne. Ji sala 1985'an şûnde, eva bo cara bîst û yekan e ku komara Îslamî a Îranê di Civata Giştî ya RNY de ku cihê herî mezin yê kombûna welatên cîhanê ye, ji ber binpêkirina mafê mirovan tê mehkûmkirin.

## Şerê Xezeyê Pêvajoya Aştiyê Di Rojhilata Navîn De Xiste Qonaxeke Nû



Di çend rojên borî de, êrîşên du alî yên Îsraîl û Hemasê kete rojeva medya û dîplomasiya cîhanê. Piştî bi dawî hatina dema agirbesta şeş heyvî a navbera her du aliyan de, Hemasê bi avêtina dehan mûşekan êrîş kire ser Îsraîlê û di bersivê de jî, Îsraîlê roja şemî, 27.12.2008'an, êrîşî kir ser Xezeyê. Zêdetirî 300 kes hatine kuştin û bêtirî 800 kes jî birnîdar bûne.

Bi lênihêrîneke hûr ji wê bûyerê û aloziyên din ên Rojhilata Navîn, bo mirov derdikeve ku sebebkarê sereke yê wê kuştara Xezeyê, Komara Îslamî ya Îranê ye ku bi handana rêberên tundrev ên Hemasê, şer û aloziyan diafirîne.

Ji aliyekî din ve jî, Komara Îslamî dixwaze pêwendiyên sar û dûriya ku vê dawiyê welatên Ereb li hember wê rejîmê meşandine, normal bike. Komara Îslamî a Îranê piştgiriyeke xurt û eşkere ji Hemasê û girûpên din ên tundajo ên Îslamî di herêmê de dike.

# Serkevtina Obama Hilweşîna Sînorê Newekheviyê...

Dilawer Hinare

Amerîka û civaka Amerîkî û her bizav û guherîneke wê weke mînakekê ye ji bo gellek kesan di hemû cîhanê de. Bi rastî bê heger nine ku Amerîka motora aborî û ekonomiya cîhanê tê binavkirin. Ez dibêjim ku ew civak û sîsteme motora hemû pişk û warên civakî, siyasî, kultûrî, çandî û wd... a cîhanê ye. Bi taybet hilbijartina Amerîkayê ku hemû carê bala pirr kesan di cîhanê de bo aliyê xwe radikişîne.

Hilbijartina vê carê ferq û cudahiyeke taybet tevî carên berê hebû. Tabetmendiya hilbijartina vê carê di vê çendê de bû ku vê gerê du kesên cudaxwaz û sînorşikên berbijar bûn. Yek ji wan "Hillary Cilinton" weke jinek bû ku bo cara yekemîn bû berendama Serok Komariyê ku heta wê demê kesê bawer nedikir ku jinek bibe Serok Komara DYA'yê û taybetmendiya din jî berendambûn û di dawiyê de jî serkevtina Obamayê reşpêst (kesê di esla xwe de Afrîqî) bû.

Serkevtina şexsekê ku di wê hilbijartinê de gellek kesan li hemû cîhanê bala xwe didan vê hilbijartinê, weke ku tu bêjî eva hilbijartina Serok Komariyê ye ji bo hemû cîhanê.

Ew serkevtine di halekê de bû ku pirr kesan bawer dikir ku di Amerîkayê de çermreşek bibe Serok Komarê wî welatî û bi şik û guman lê dinêrîn û dipejirandin.

Lê serkevtina han sînorê herî dawî yê destçêkirî di navbera Amerîkiyan de hilweşand û pêngaveke herî mezin bû ji bo şikandina dîwarê ne wekheviyê û ferq û cudahîdananê di navbera hemû welatiyên çermreş û sipiyan de.

Bi wê serkevtinê hêvî û xweziya "Martin Loter King" ku çend dehsalan berî niha hêvî dixwast ku rojekî wisa bihê ku çermreşek bibe Serok Komarê DYA'yê. Îro ew hêvî û xweziya wî bi serkevtina Obama hate cî.

Ew yek jî berhema sîstemeke demokratîk û azad weke sîstema Amerîkayê ye. Sîstemek ku rexnehilgir e, bersivder e û xwe li hemberî gel û hevwelatiyan berpirsiyar dizane.

Bi hebûna medya, rojname, radyo, televîzyon û dezgehên din yên ragihandinê, mirov dikare her sînorekê bibezîne. Her tixûbek ku li dijî mirov û mafê mirovahiyê ye. Eva yek ji xalên erênî ên sîstema demokrasiyê ye ku bi dana derfeta wekhev, cuda ji reng, nîjad, ol û bawer dibe sedema vê yekê ku mirov bawerî bi xwe hebe û seh pê bike ku mirov di wê civakê de xwedî mafê beranber bi hemû hevwelatiyan re ye. Bîrkirin û bawerî bi wê yekê di mêjiyê mirovan de, hêzekî ruhî û rewanî dide meriv û dibe sedema wê bîr û baweriyê ku çunkî ew şexse xwediyê maf û heqê wekhev wekî welatiyan e û ji bo pêşveçûn û serkevtin di kêbirkêya cîvakî, siyasî û wd... de şiyan û hêza xwe zêdetir bikar bîne. Ev yek dibe sedema pêşketin û geşekirina şiyan û karînên takekesî ên mirov û baweriya însanan bi xwe û bi civaka xwe. Hebûna medyaya azad û demokrasiyê ku ew medyaya azad û rexnegir weke çavdêrekê û her wiha weke çav û guhê civakê hertim çavdêr û rexnegir in, li her kêmasiyekê ku ji



aliyê desthilatê ve tê holê û her bizav, tevger û guhertinek bi hûrbînî ve tê lêkolîn û dahûrandin. Wê demê medya wekî parêzvanên civakê tên naskirin û rola xwe di nav civakê de bi erênî dilîzin û tirs li wê medyaya şiyar û rexnegir û çavdêr weke tormizekê ye ji bo desthilatê.

Berevajî wê sîstemê, di sîstema dîktatorî û îdeolojîk de ku li ser bingeha olî û desthilata takekesî hatiye avakirin, weke rejîma "Welayeta Feqîh" ya Komara Îslamî, welatî li gora bîr û bawer û dûr û nêzîkbûn bi fikr û îdeolojî û dezgehên vê pergala kevneperest dibe xwedanê/a mafan, her bi hegera bawermendî û pejirandina îdeolojiya rejîmê ye ku dibe xwedî derfetên mifahwergirtin ji îmkanatên civakî, aborî, siyasî û wd ... .

Ya ecêb û seyr ewa ye ku berî serkevtina Obama, berpirsên rejîma Îranê bi taybet Ehmedînejad, Serkomarê wê, gellek caran basa hebûna ferq û cudahîdanan li Amerîkayê dikirin û berdewam bang dikirin ku çermreşên Amerîkayê di bin zilm û zordariyê de ne û mafên wehkev ên weke sipiyan tu ninin. Ehmedînejad salekê berî niha gotibû: "îmkan nine ku kesekî reşpêst bibe Serok Komarê DYA'yê", niha jî her roj rexneyan li sîstem û civak û demokrasiya Amerîkî digirin.

Bersiva herî baş vê carê Obamayê çermreş da Ehmedînejad û hevbîrên wî ku bi gotina M. Ehmedînejad heta duh nedibû û îmkan tu nebû bibe Serok Komar. Ez bawer im kesên ku hilbijartina vê carê a DYA'yê dişopandin, di bîra wan de ye ku piştî belavkirin û ragehandina encama hilbijartinê, Obama bi vî awayî bersiv da û got: "îro û bi vê hilbijartinê hemû ew kesên ku bi demokrasî û sîstema Amerîkayê re bi guman dinêrîn û şik li ser demokrasî û hêza demokrasiya Amerîkayê hene, bi vê hilbijartinê bersiva xwe wergirtin".

Belê, ez û hemû gelên bindest yên Îranê jî hêvîdar in ku ewa bibe nimûneyek ji bo desthilatdarên rejîma Komara Îslamî a Îranê û bo carekê jî be li xwe û kar û kiryarên xwe bifikirin û derfetên azadî û mafên însanî bidin hemû welatiyên kêmneteweyên wî welatî û weke Amerîkayê hevwelatî cuda ji reng, ziman, ol û bawerên xwe bibin xwediyê maf û derfetên wekhev. Ji ber îdeolojî û qanûnên vê rejîmê ye ku dehan milyon Kurd, Belûç, Turkmen û wd... tenê bi sûçê ku bawerî bi Welayeta Feqîh tu ninin û bawermendên Ola Sunî û ... ne, nikarin bibin berbijarên Serok Komariya welatekê ku hezaran sal e têde dijîn!

Rejîma Komara Îslamî û îdeolojiya Welayeta Feqîh tu kiryar û gavek erênî ji bo pêşveçûna jiyana mirovahiyê pêşkêş nekiriye, tenê berhema wê baweriyê di cîhanê de, şer, teror, ajawe, dubendî û alozîçêkirin, terorîstperwerî, mirovkujî, paşmayîn û paşketina civakê û aboriya Îranê û ji hemûyan girîngtir serşorî û serşikestiya gelên Îranê ye.

Bi vê hêviyê ku di pêşerojeke nêzîk de di Îraneke demokratîk û federal de û bê hebûna rejîma Welayeta Feqîh, hilbijartinên azad û serbest, Kurd, Belûç, Turkman, Cihû, Behayî û wd.. bikarin bibin Serok Komar û bê ferq û cudahî beşdarî hilbijartinan bibin û çarenivîsa xwe bigirin destê xwe.

# Turk û Pirsa Televîzyona Kurdî



**Silêman Keleşî**




Her wek em dizanin piştî navçûna Împeratoriya Osmanî û çêbûna Komara Turkiyê di sala 1923'an de, bi rêberiya Mistefa Kemal (Ataturk), heta niha nekariye bi fermî hebûna Kurdan di wî welatî de qebûl bike, hikûmeta dagirker ne tenê Kurd qebûl nekirin, her wisa herdem û bi hemû awayekê hewil da ku Kurdan qir û asîmîle bike. Bo gehîştin bi wan armancên xwe yên nemirovane jî gellek cinayetên hovane derheqa Kurdan kirine.

Lêbelê gelê Kurd bi mêrxasî li hember wan berxwedan kiriye û teslîmê xwastekên wan nebûye û berevajî xebat û berxwedaneke hêja ji bo parastina xwe û ziman û kultûra xwe kirine, heta îro jî ew xebate her berdewam e, lê piştî derbazbûna 85 salan û guhartinên bingehî di cîhanê de çêbûne û çê dibin. Cîhan û herêm ber bi guhertinên wek serxwebûna netewan, pêlvedana demokrasî û mafê mirovan, jinavçûn û leqbûna dewletên dîktator û zilmkar, taze hikumeta Turk amade ye ku televîzyonekê bi zimanê Kurdî ji bo 20 milyon Kurdan biweşîne, her çend ew pêngava gaveke erênî ye, wek Kurd dibêjin: "Mirov li nîvarê jî wergere baş e."

Êrê gelo tu bêjî ew pirsa û gellek pirsên din bo Kurdan û wan kesên ku ji nêzîk ve siyaseta Turkiyê dişopînin û digel wan hemû kîn û nefretên Turkiyê derheq Kurdan nasyar in, tu bêjî Turk û hikumeta Genralên Turkiyê bi rastî û bi mentiq bi wê qinaetê gehîştibin, ku ji bo helandin û tunekirina Kurdan her çi destê wan hat kirin, lê di karê xwe de ser neketin. Hewce ye hebûna Kurdan bi her awayekê be di sedsala bîst û yekan de qebûl bikin û ji bo çareseriya wê pêngavan bavêjin? Yan jî divê ji ber bilindbûna xebata û berxwedana Kurdan û her wisa ji ber givaş û gazindeyên dewletên Ewropaî û aliyên dinê ye ku naçar bûye wê pêngava nejdil hilbigre û wek rêberê berê yê Îranê Xomeynî fîncana jehrê qebûl bike?

Hewce ye pirr bi kurtî bersiva wan du pirsan bidim. Danîna televîzyoneke Kurdî bi fermî li Turkiyê, gaveke erênî ye, lê dê çi bandorek hebe, carê diyar nine ka dê çawa û çi biweşîne. Hêvîdar im ku nebe sedemê nakokî û dubendiyê di navbera Kurdên Bakûr de.

Hikumeta Turkiyê yan her aliyekî din di Turkiyê de bixwaze ku pirsa nêzîk bi 20 milyon Kurd wek dozeke neteweyî di bakûrê Kurdistanê de ku heta niha ji hemû mafên xwe yên mirovî û neteweyî hatine bêparkirin, bi danîna televîzyonekê çareser nabe, lê dikare destpêkek piçûk be. Lê wextê ku mirov gotin û kiryarên Serok Wezîr Erdogan û karbidestên Turkiyê dibîne û dibihîse, mirov nikare bawer bike ku hikumeta Turkiyê bi awayekî mentiqî gehîştibe wê bawerê ku pirsa Kurdan di Turkiyê de çareser bikin, ji ber vê çendê eger Serok Wezîrê Turkiyê û partiya wî dixwazin bi dil ji bo çareseriyê gavan bavêje, çawa wek dehan salan dîsan dibêjin, yek welat, yek ala, yek netewe. Ew gotin û ramane alîkariya çareserkirina mesela Kurd nakin.

Pirsa dinê, heke hikumetê piroje hebe û bixwaze bi awayekî aqilane û realîst hebûna Kurdan qebûl bike, û bixwaze rewş û zirûfekî jêhatî ji bo çareseriyê biafirîne, çawa dibe her di wî wextî de keseke weke Leyla Zana Parlemantara berê ku 10 salan ji ber parastina mafên gelê Kurd li Bakûrê Kurdistanê girtî bûye, û îro wek kesayetî û rêbereke Kurd di nava Kurdan û cîhanê de hatiye naskirin û seba vê yekê çendîn xelatên girîng ên cîhanî wergirtine, di demeke wiha de Leyla Zana li ser axavtin û parastina Kurdan bi awayekî demokratîk û medeniyane dîsan bi 10 sal cezayê girtîgehê tê mehkûmkirin. Her wisa ew hemû dijberîkirina Turkiyê li Îraqê û Başûrê Kurdistanê ji bo têkdana Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi giştî û nemaze bajarê Kerkûkê, û dehah û sedan komlo û pîlanê dinê ji bo tepeserkirina Kurdan di cîhan û herêmê de roleke mezin dilîzin, hemû ewane delîl û belge ne ku didin hollê, miram û niyaza wan ne pak e.

Di wan demên dawîn de hikumeta AKP'ê hinek liv û tevgerên wisa dest pê kiriye ku bikare Kurdan bixapîne, wek Kurd dibêjin: **"Ava bin kayê"**. Ew civîn û hatin û çûnên wê yên fermî digel hikûmeta Başûrê Kurdistanê û danîna televîyonekê bi zimanê Kurdî û gellek karên dinê wek wan, hemû û hemû ji ber vê hindê ne ku hilbijartinên Şaredariyan li Turkiyê dest pê dike. Erdogan hertim dibêje ez Şaredariya Diyarbekirê dixwazim, ji bo bidestveanîna Şardariyen Bakûrê Kurdistanê bi giştî, Şardariya kela berxwedan û paytexta Kurdistanê Diyarbekir û bajarê Wanê ye.

Wextê mirov wan hemû gotin û kiryar û bîr û ramanên wan datîne berhev, bo mirov derdikeve holê ku bi rastî ew naxwazin pirsgirêkan çareser bikin, belkî tenê taktîk e ji bo bidestveanîna wan armancên jêr: Bidestveanîna Şardariyên Kurdistanê, bi taybet Diyarbekir û Wanê, bi hevkariya hindek Kurdê Başûr. Piştre xwe wek nûnerê xelkê Kurd bi nav kirin. Bi danîna televîzyonê û re kêmkirina temaşavanên tv'yên kurdî, kêşana hin kesan ji bo aliyê xwe û çêkirina dubendiyê di nava Kurdan de.

Bi wan karan, girtina jestekî Ewropaî û xwe nêzîkkirin ji welatên Ewropî û pêşketî.

Bersivdanek be bi wan givaş û rexneyên ku li ser pirsa Kurd li wan têne girtin. Dewleta Turkiyê heta wan demên dawiyê jî her bi hizra hêz, qawet, barbarî û artêşa xwe doza Kurd û gellek pirsên dinê çareser dikirin, lê îro ku AKP a Îslamî bi tena serê xwe hikûmet girtiye destê xwe û dostîtî bi Komara Îslamî ya Îranê re heye û dibe pêş. Mirov dikare bibêje ew siyasta nerim, lê bi xeter û hovane ji dostên xwe yên Îranî fêr bûne. Wek gotineke Kurdan ku dibêje: "Dev dost, dil xayîn". Hewce nine ku ez basa siyaseta Îraniyan li hember Kurdan bikim, ez bawer im ku kurd baş wê yekê dizanin.

**RONÎ**

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên ”Agirî” re

**Ebdullah Hicab**



# Komîsyona Jinê Ya Bê Çare

Navê ”Komîsyona Jinan a Parlemana Komara Îslamî” pirr kêm hatiye bihîstin û çalakiyên îhtimalî yên wê komîsyonê kêm-zêde di civakê û di medyayê de dengvedan tu nebûye. Lê wisa diyare komîsyonek bi wî navî li Parlemana Îranê heye û qaşo li ser maf û mijarên pêwendîdar bi berjewendiyê jinê re kar dike. Li gor nûçeyek hema – hema nîv veşartî di heftiya dawî de, komîsyona navhatî bi serokê olî, Elî Xameneyî re ji ber pirsek li ser mafê jinê ketiye têkiliyê û dîtina wî ya li gor şerîetê li ser wê mijarê pirs kiriye. Balkêş e, meriv meraq dikir ka gelo ew mafê ku li gor nûçeyê çarçoveya wê nediyar e û Parlemanê jî nekariye biryarê li ser bide, çiye ku ji bo bersivê neçar mane ji rêberê olî pirs bikin.

Li gor nûçeyê, berdevka Komîsyona Jinan ya Parlemana Komara Îslamî, Lale Iftixarî, li ser wê mijarê axiviye û ragihandiye ku beşa jinê ji mîrateya mêrê mirî di warên zevî (erd) û xanî de heya niha nehatiye kifşkirin û Parleman jî nikare di wê mijarê de tu biryarê bide. Lewma ew neçar maye ji bo ku biryarek li gor pîvanên şerîetê bistîne, xwe bavêjecem rêberê olî û bersivê ji wî bixwaze. Mijar li ser mafê jina bê zarok e ku dema mêrê wê dimre heya ku dikare ji mal û milkê mêrê mirî beşemilkê xwe bistîne.

Bi guhdarîkirina wê nûçeyê re, hema bê hemdî xwe ew pirs dikeve serê meriv ka gelo heya niha Xameneyî û felsefeya wî kîjan maf ji bo jinê li ber çav girtine heya ji niha û pêve mafek nû ji bo jinê bi dest bixin û biparêzin. Di warê şahidîdanê de 2 jin mîna yek mêrî tên temaşekirin. Jinê dema cudabûn ji mêrê xwe mafê xwedîderketin ji zarokên xwe nîne, jin nikare di warê aborî de li ser piyê xwe bisekine. Jin nikare bi tenê bigere, jin nikare bi dilê xwe şirîkê jiyana xwe hilbijêre. Jin nikare bi serbestî kar bike. Jin nikare bibe xwediyê pozisyonek hiqûqî û civakî ya serbixwe. Jin nikare bibe hakim, bibe dadwer, bibe wezîr, bibe serokkomar, bibe serokê Parlemanê, bibe xwediyê karek serbixwe. Qasî mêr an zarokê xwe yê nêr ji mîrateya mêrê xwe beşê bistîne.

Gelo Xameneyî û felsefeya ew birêve dibe çi qas giringiyê dide mafê jinê û dikare bersivek çawa bide pirsa di derbarê mafê jinê de? Ji bo bersivê hema hind bes e ku em goşeyek ji piratîka rêjîmê derheqa jinan de bi bîr bînin. Di çarçoveya Komara Îslamî de jin xwediyê kesayetiya serbixwe nîne û weke dûvajo û beşek ji kesayetî û namûsa mêr tê hesibandin. Ew emrazek di destê mêr de ye ji bo rihetiya jiyana mêr, xweşiya navmalê, xwedîkirina zarokan û weke sebr û sitara malê tê temaşekirin. Jin, keç e, xwîşk e, dayîk e, namûs e, lê kesayetiya serbixwe ye civakî û huqûqî nîne. Ew dara şikestî ya di destê mêr de ye û heya dijî divêt xizmetkara mêrê xwe, bavê xwe, bira, xal, mam, pismam, kurxal û hwd be. Komîsyonek her çiqas ji endamên jin pêk bê, dema di çarçoveya wê sîstemê de ji maf û berjewendiyên jinê bigere, li çola zuha di payîzek sar de ji gulên buharê digere.

Sebekarê şikandina kesayetiya jinê û bêmafhêştina wê di civakê de, kesên mîna Xameneyî û xwediyê felsefeya wî ne. Bi zanîna wê rastiyê re, diyare ku bersiva Xameneyî li ser mafê jinê di wergirtina mîrate piştî mirina mêr, dê di çarçoveya dîtina giştî ya Komara Îslamî li ser jin û mîrate û mafê jinê de be. Ew dîtin di bingeha xwe de li ser bêmafî û bê edaletiyê hatiye avakirin.

Dijberiya Komara Îslamî bi mafê jinê re di hemû warên jiyan û civakê de li ber çav e. Somaliya, Efxanistan û Îran weke welatên ku sizayên herî hov li dijî jinê bikar anîne û tînin, tên naskirin. Komara Îslamî û serokê wê yê olî, heya niha bi çi rengî mafê jinê parastiye heta ku ji niha û pêve bikarin mafê jinê biparêzin. Bi dîmenên jinên heta nîviyê di nava ax û xîz de tên peçavtin û paşan didin ber keviran û bi laşê bi xwîn hawar jê bilind dibe heya canê xwe ji dest didin, bi qêrîna jinên ji ber bê edaletiyê agir ber didin cesteyê xwe û nava agir de nefesa dawî dikêşin.

Di girtîgehên Komara Îslamî de, hejmara jinên ku ji ber siyasetên rêjîmê jiyan û pêşeroja wan tarî bûye, nayê hesabê. Di civakê de hejmara jinên ku hêvî û sitara xwe ji dest dane û penaha xwe birine ber madeyên hişber çiqas in? Kî ji wan xwedî derdikeve, ew li ku dijîn, bi çi dijîn, çawan derbas dikin, kî ji wê rewşê berpirsyare? Gelo Xameneyî, Komîsyona Jinan ya Parlemana wî û beşên din yên wê sîstemê çi bersiv ji wan pirsan re hene?

Ma hejmara jinên ku li ser raman an ji ber karê xwe ketine girtîgehan û can û jiyana wan di tehlîkeyê de ye kêm e? rojnamevana jin, Zehra Kazimî tenê ji ber karê xwe bi pên û qamçiyên Pasdarên Komara Îslamî hate kuştin. Jinên bi îrade yên Kurd weke Hana, Ronak û Zeyneb û bi dehan jinên din tenê ji ber ku hawara bêmafiya xwe bilind kirine, wan sizayên giran dibînin. Gelo ma Komîsyona Jinan û rêberê olî yê rêjîmê ji hawar û pirsên wan re bersivek heye?

Lewma penabirina Komîsyona Jinan bo Xameneyî ji bo ku sînorê mafê jinê diyar bike, bi tenê pêngavek xapînok ji bo pitir bindestkirina jinê ye. Bi dîtina wê rastiyê, ewa ku niha ji Xameneyî tê xwestin heya dîtina xwe li ser bide, ya rast tenê dikare bêmafiyek nû ji bêmafiyên pêşîn ên jinê zêde dike. Ji wê bi der, ne karê Komîsyona Jinan û ne helwêstên Xameneyî çawa ku heya niha tu fêde ji maf û berjewendiyên jinê re tune bûne, ji niha û pêve jî tu fêdeya xwe nabin.

Bidestxistina mafê jinê û sererastkirina wê bê edaletiya ku di civakê de derheqa mafê jinê tê kirin, dê hingê bi dawî be ku zêhniyeta desthilatdar li civakê bê guhertin û sîstema Komara Îslamî ji binî re nemîne. Ji ber ku qedera jinê û ew bê edaletiya di derheqa mafê jinê de tê kirin, bingeha olî nîne û ger îradeya siyasî hebe, dê bê guhertin? Ji ber ku mîna mêr, jinê jî mafê hindê heye ku ji kesayetî û ji sînorê mafê xwe xwedî derkeve.

Felsefeya Xameneyî, parlemana wî û komîsyona jinan ya wê parlemanê diparêzin, tu qedera merivan di destê wan bi xwe de nahêle. Li gor wan kî di wê jiyanê de çi dike, kî çawa dijî, kî çi xirabiya dike, dizî, mirovkujî, gendelî, hemû diyardeyên xirab bêy îradeya merivan dimeşin û ji roja yekê ve hatine diyarkirin. Lê mirovatiyê nîşan daye ku ew dîtin ji binî re şaş e. Bêmafkirina jinê karê beşek ji civakê bi xwe ye. Biryara li ser guhertina wê rewşê jî her di destê wê civakê û birêveberên civakê de ye.

Parlemana Îranê digel ku bi şeklî mîna meclisek ciyê biryardanê kar bike, lê di rastiyê de mafê biryardana li ser tu mijarên giring nîne. Dema mijarek tê berbasê jî, li ciyê ku nîqaş li gor pêwîstiya civakê û daxwaziyên xelkê bin, hertim bingeha biryardanê şiroveya paşverû ya rêberê olî ye. Lewra hebûn û nebûna wê parlemanê weke hev e û parlemanek ku nekare li ser mijarek weha ber bi çav biryarê bide, ji xwe tunebûna wê pirr ji hebûna wê baştir e.

# Siyasetên Derve, Parastin Û Berevanî Yên Hikûmeta Norwejê



**Elî Munezemî**

Hikumet girîngtirîn aktor in di qada siyasetên navneteweyî de. Di vê gotarê de ezê hewil bidim ku bi li ber çav girtina hindek teoriyên gorepana siyaseta navneteveyî, siyasetên derve, parastin û berevanî ên hikûmeta Norwejê û ev stratêjiyên ku hikumet bi kar tîne bo leyîstina roleke baş û zindî di civaka navneteweyî de bo desteberkirina qazancên neteweyî şirove bikim.

Li gor teoriya ***realîzma kilasîk***, her takek di rastî de xweperest (egoist) e û ev tişta ji bo hikûmetan jî her rast e. Hêz alaveke e bona parastina qazanc û berjewendiyan. Hikumet bi hebûna heqê monopol û bo bikaranîna hêzê, girîngtirîn aktor e, û peywendiyên navneteweyî rast mîna pêwendiyên di navbera hikûmetan de ye. Ji ber vê yekê girîng e bo hikumetan weke aktorên ku bi şêweyek aqilane û siyasî kar dikin, hêza xwe tevî hêza dijminên mumkin hevteraz bikin, ku bikarin bi vî awayî aramiyê pêk bînin. Siyasetên parastin û bervaniyê zêdetir dikevine vê çarçovê.

Li gora teoriya ***strukturell realîzmê*** jî çarçoveyek rêxistinî a navneteweyî di navbera hikumetan de heye. Her wek **Waltz** dibêje ku sîstema navneteweyî ***dêsentralîze*kirî** û bi awayekî anarkîstî ye. Ji ber ku sîstema navneteweyî bi awayê hiyêrarkî (yanî hilbijartin li xwarê bo sereve û biryardan li sereve bo xwarê) nehatiye organîzekirin. Pêka ku Waltz bas lê dike, sibat (cîgirî, îstiqrar) girêdayî bi hebûna çend cemseran heye ku hikûmet bikarin xwe tevî wan cemseran rêk bixin. Siyaseta derve û berevaniyê zêdetir li gora wê teoriyê tê şirovekirin.

***Realîzma taze (neo- realisme)*** dide zanîn ku her hikumetek li rewşa dereveyî sînorên xwe kartêkeriyê werdigre. Yanî her hikumetekê hewceyî bi vê yekê heye ku rewş û ev tiştên ku di welatên din de jî diqewimin, li ber çav bigre, bona ku bikare bigihîje armancên xwe. Li gor teoriya realîsma taze, organîzasiyonên ***ne- hikumeti (NGO)*** jî rolek girîng hene di darêştina siyasetên navneteweyî de. Hikumet jî niha zêdetir li caran girêdayî bi hev in. Ev yeka dibe sebeb ku organîzasiyon û qanûnên navneteweyî bêne danîn. Wek nimûne em dikarin îşarê bi "IMF" û "WTO"ê bikin. ***Realisma nû*** jî ku hêza hikumetî girîng dide nirxandin, lê sibat (cîgirbûn) bêy hebûna ***hejemonî***'yê ne mumkine. Ji ber ku divêt hikûmeteke xwedî hêz hebe ku bikare wan hikumetên ku qanûnên navneteweyî bin pê dikin, bide sezadan.

***Lîbral înstîtusîonalîsma nû*** her mîna *realîsma nû* bas li globalîzasiyon û aqilmendiya hikumetan weke aktor dike, lê zêdetir li ser vê yekê pê dadigre ku qazancên xasmanî ji rêya hevkariyê dikarin bên bidestxistin û hevkarî dikare bi derbasbûna zeman qahîmtir bê kirin ji rêya damezirandina înstîtusîonan ve. Ji aliyekî din ve kêmkirina astengiyan li ser rêya bazirganiyê dikare bi qazancê hemûyan xilas be û ev yeka jî her ji rêya avakirina înstîtusîonan ve dikare bi pêş ve here û bibe sedem ku hemû aliyek bi hev re bêne girêdan. Ew bi hev re girêdana dê bibe sebeba ewleyî, aramî û aştiyê ku şer dernekeve holê. Pêşkevtina yasayên bin "GATT"ê de dikarin nimûneyek baş be bo vê yekê.

***Konstruktuvism*** li ser hebûna nasnameya hevpişk tekezê dike û dide diyarkirin ku hikumetên xwediyê nasnameya weke hev baştir dikarin tevî hev hevkarî û dan û standinê bikin. Nasnameya hevpişk dibe sebeb ku hindek hikumet hêsan bikarin tevî hev karên hevbeş bikin. Bo nimûne hevkariya di navbera dewletên Ewropa ji bo hebûna kultûr û nasnameya hevpişk vedigere.

**Siyasetên derve, parastin û berevanî yên hikumeta Norwejê**

Siyaseta derve bi meydana hikumetî li derve û karên formolekirî tê gotin ku li vî cihî stratêjî tên hilbijartin û di bin ronahiya xwe famkirina giştî ya hikûmetê de îmkanat tê bikaranîn. Hikûmeta Norwejê bi hebûna înstîtusiyonên xwe li hundir û li dereve hewil dide bo parastina qazancên giştî yên xelkê xwe. Wezareta Derve weke girîngtirîn înstîtusiyon hemû derfet û îmkanatên xwe bi kar tîne ji bo parastina qazancên Norwejê di meydana navneteweyî de.

Stratejiyên cur bi cur hene ku hikumet hildibijêre bo zêdetirkirina qazanc û parastina hêminiyê. Yek ji wan xweîzolekirin e. Lê ev stratêjiya tu caran di Norwejê de nehatiye bikaranîn. Hikumeta Norwejê di heyamê navbera wergirtina serxwebûna xwe di sala 1905 heta sala 1940'an de, stratejiya bêterefî yan xunsa (neutral) girte ber xwe. Ew stratejiya piştî sala 1940'an ku Almanî hatne nav xaka Norwejê, ji ber stratejîkbûna coxrafiyayî û nebûna baweriyê bi hêza leşkerî (ya Norwejê) ji bo parastina welat, manaya xwe ji dest da. Ji ber vê hindê, Norwejê endambûn di peymana NATO'yê de hilbijart û di sala 1950'ê de bû endamê peymana NATO. Endambûn di peymana NATO de bû sebebê parastina Norwejê di heyamê şerê sar de.

Di siyaseta derve de dîplomasî wek amrazek girîng giraniya xwe heye. Pirr caran bo çareserkirina pirsgirêkan yan jî bo pêwendîgirtinê, hewceyî bi karê dîplomasiyê heye. Her ji ber vê yekê, Norwejê di gellek welatan de defterên nûnerayetiyê (ambassad & konsulat) hene. Her wisa pirr caran ji bo karên pêdivî dîplomatan rasterast jî dişîne bo behs û diyalogê tevî hikumetan yan jî organîzasiyonên navneteweyî. Mezintirîn yan jî yek ji mezintirîn pirsgirêkên îro rojê ên pêşberî hikumeta Norwejê, pirsa parvekirina behra ***Barent***'ê (***Barentshave***) ye tevî welatê Rûsiyê.

Pêşkevtina aborî û teknolojiyê bûye sebeba bilindbûna hejmara dosyayan di warên cur bi cur ên siyaseta dereve de. Bi hev re girêdayîbûna du aliyane di warê bazirganî, sermayeguzarî, lêkolîn, guhartina jîngeh û koçberiyê bûye sedem ku siyaseta dereve îro rojê ne bi tenê parastina çarçova ewlekarî û serxwebûna siyasî be. Wezareta Derve jî îdî tenê nine bo şirovekirina siyasetên derve. Wezaretên din jî hevkar in tevî Wezareta Karê Derve li gor hewceyî bi pisporan di warê xasmanî de. Bo nimûne pirsên aborî ku girêdayî pirsên derveyî welat be, bi hevkariya Wezareta Aboriyê têne çareserkirin ku nebe sedem hikumeta Norwejê hindek berpirsiyariyan bigre stûyê xwe ku hewceyî bi îmkanatên malî yên mezin hebin. Îro rojê siyasetên derve ên hikumeta Norwejê li ser bingeha hindek nirxên xasmanî weke beşdarîkirin di cihgirkirina aştî û çareserkirina pirsgirêkên navneteweyî tên darêştin û birêvebirinê. Nimûna herî berçav, hewlên hikûmeta Norwejê bo aştiyê di navbera Îsraîl û Filistiyan de ye. Ji ber ku nirxa têkoşîn bo aştiyê û çareserkirina pirsan bi rêya aştiyane, gellek nirxên kêmtir li çareserkirina pirsan bi rêya şer re heye. Şer ne tenê nirxên aborî belku nirxên mirovî jî hewce ye. Xebat ji bo parastina mafên mirovan, demokrasî, xebat ji bo nehêştina destkurtiyê (xizaniyê) û mafên navneteweyî, girîngtirîn armanca siyasetên derve yên hikumeta Norwejê ne. Ji ber ku her yek ji van xwediyê nirxên bingehîn û hem jî qazancên hikumeta Norwejê desteber dikin.

Endambûna Norwejê di organîzasiyonên mîna Neteweyên Yekbûyî, WTO, EØS, IMF û beşdarîkirin di gellek biryardanan di YE'ê de, dide xuyakirin ku Norwej rolekî aktîv di meydana navneteweyî de dilîze. Endambûna Norwejê di organîzasiyonên wek OPEC'ê de jî bo zêdetirkirina dahata aborî ye. Ji ber ku her welatek cehdê dike ku şandiniya wê ji hatiniyê kêmtir be, û govannama vê yekê dahata zêde ye bo welat. Bo gihîştin bi vê armancê, hikûmeta Norwejê ji sîstema aborî ya têkelav mifahê werdigre û hatiniya xwe sînordar kiriye û danîna gumrukan ji bo

parastina şîrket û fabrîkayên Norwejî ye. Bi danîna gumrukê li ser tiştên biyanî, nirxa tiştên wan di Norwejê de giran dibe, li gora tiştên Norwejî.

Ev yeka dibe sebeb ku şîrket û fabrîkayên Norwejî bi hêsanî bikarin rikeberiyê bikin tevî şîrket û fabrîkayên bîhanî di Norwejê de. Dana subsîdê bi fabrîkayên Norwejî ku tiştan sadetir dikin jî her bo vê armancê ye ku me bas kir. Bi vê ferqê ku şîrketên Norwejî bikarin li derveyî welat tevî şîrketên biyanî rikeberiyê bikin û rastî têkçûnê nehên. Evana hemû dibin sebebê bilindbûna BNP'ê yan jî dahata ne xalis a neteweyî. Dewlemendbûna her welatekê di warê aborî de dibe sebeba bihêzbûna wî welatî. Ji ber vê çendê min baskirina siyasetên aborî yên Norwejê ku rûyê wan li derve ye, bi hewce zanî.

**Siyasetên parastin û berevaniyê**

Siyaseta parastinê tê vê manayê ku welat li hember êrîş û tecavuza fîzîkî ya derekî, û operasyonên çekdarî û eskerî, bête parastin. Di Norwejê de siyaseta parastinê bi her du manayên erênî û nerênî tê bikaranîn. Yanî bername hatiye danîn ku çi tiştek bê parastin û di hember çi tiştî de bête parastin.

Dewleta Norwejê siyaseta xwe ya roj di warê parastinê de wiha şirove dike: Karên parastinê di roja îro de heta qasekî kêm her girêdayî bi gefên kevnar ên leşkerî ne. Ihtimalên karên terorîstî, qewimînên jîngehî û xwezayî yan jî bûyerên mezin di baznên cur bi cur ên civakê de, mezin bûne. Dewlet dê kar bike bo siyaseta parastinê bi giştî, bona bihêzkirina ewlekariya civakê û balanseke baş di navbera amadekariya leşkerî û sivîl de.

Ev yeka dide diyarkirin ku Norwej kêmtir ji caran nigeranê gef û hêrişa leşkerî ya ser xaka xwe be. Lê kiryarên terorîstî tehlîkeyek mezin e bo têkdana tenahî û ewlekariyê li dijî welat û hevwelatiyan. Siyasetên berevaniya Norwejê piştî bi dawî hatina şerê sar, guhartinek mezin bi xwe dîtiye û hikûmet zêdetir xwe amade dike ji bo van gefên ku taze serî hildane û ev tehdîdane vedigerîne bo piştî şer li dijî terorê. Parastina giştî a ku hikûmeta Norwejê bas lê dike, tenê xwe amadekirin li dijî karên terorîstî li xwe nagire. Di vê dawiyê de ku rêxistinên terorîstî bazirganî û belavkirina madeyên bêhişker kirine stratejiya xwe li hember welatên Rojava, beşek mezin li bername û siyasetên ewlekarî û parastinê ya hikumetê bi xwe digire.

Her çend ku piştî dawî hatina şerê sar, gef û gurrên leşkerî li dijî welat kêmtir û kêmrengtir bûne ku bi başî bas lê bê kirin, lê hikûmet xwe ji pirrçekkirinê xafil nemaye. Ew li ser vê bawerê ne ku xeter li dûr ve her heye û tenê bi rêya leşkerî nahên çareserkirin. Ez bawer im ku hikûmeta Norwejê jî hemû hikumetên dîktator û gurûpên terorîstî bi xeter û tehlîke li ser tenahiya welat dizane û hewildan û hevsengerbûn tevî USA (DYA) û şandina hêza leşkerî bo Efxanistanê di vê çarçoveyê de cî digrin. Ji ber ku jinavçûna hikûmetên dîktaror û hatina ser kar a hikumetên demokratîk dibin sedemê cîgirbûna aştiyê di cîhanê de. Pirr bi kêmî tê pêş ku welatên demokratîk tevî hev şer bikin. Lê şer di navbera hikûmetên demokratîk û dîktator de zêdetir ihtimal heye.

Endambûna Norwejê di NATO'yê de her berdewam e. Em dikarin li ser vê jî wiha bibêjin ku Norwej hêşta jî her Rûsiyê bo xwe xeter dihesibîne û endambûna Norwejê di NATO de dibe sedem ku zêdetir hest bi tenahiyê bikin li hember dijminêm ihtimalî de. Xwe nêzîkkirina Norwejê li Yekîtiya Ewropayê jî ku xwediyê hevbendiyekê ye di navbera endaman de, di warê berevaniyê û siyasetên derve de û gellek welatên bihêz jî tê de endam in, dikare dûrbîniya hikûmeta Norwejê be bo rewşa piştî hilweşana NATO (eger rojek wisa hat û NATO hilweşe). Ji ber ku Norwej paşan bê pişt nemîne.

Hevkariya Norwejê tevî beşa parastina YE'ê û beşdarîkirina Polîsên Norwejê di çend operasiyonên hevbeş di Bosniya û Makedoniyayê de, ku hêşta endamê EU'ê nine, bi başî van rastiyan dide diyarkirin û Norwejê di pêşerojê de hewceyiyek mezin bi Yekîtiya Ewropayê heye di warê ewlekarî û berevaniyê de. Her di warê parastina tenahiya avî de jî Norwej bêkar ne sekiniye. Bo wî karî jî hem tevî beşa berevaniya YE'ê û hem jî tevî IMO'ê hevkariyek nêzîk dike. Hêjayî gotinê ye ku wezîfa sereke ya IMO'ê bilindkirina asta ewlekariya deryaan û nehêlana pîsbûna behran e. Ev tiştên ku bas lê hate kirin, bi ronî ji me re dide xuyakirin ku Norwej jî her wek gellek welatên din, parastinê bi girîng digre û hikumet hewil dide bo bilindkirina asta tenahiyê di hemû aliyekê de.

**Jêder:**

- Anarki, makt og normer, Hovi & Malnes:2007: kap. 2,5,6 og 16
- •http://www.regjeringen.no/nb/dep/ud/kampanjer/refleks/identitet.html?id=478913
- •http://www.regjeringen.no/nb/dep/ud/tema/Sikkerhetspolitikk/Sikkerhetspolitikk.html?id=86753
- •http://www.eu norge.org/Politikkomrader/Sikkerhet+og+forsvar/
- •http://www.regjeringen.no/nb/dep/nhd/dok/regpubl/stmeld/20032004/Stmeld-nr-

## Şiroveya Peyvên Siyasî

Berhevkar:
Omîd Esxeran
omid_anbi@yahoo.com



# BORUKRASÎ

Têgiha Borukrasiyê ji peyva "Bureau" bi wateya kargêrî "Cratie" yan jî "Kratos" bi maneya hikûmetê hatiye wergirtin û bi giştî dibe hikûmeta kargêrî yan dîwansalarî(dîwan bi wateya nivîsîngeh û salarî jî bi wateya serdest û serokatî).

Borukrasî ji metodeke hikûmetiyê re tê gotin ku tenê bingeh û yasayên tund û tûj ên kargêrî bi ser de zal e û borukrat jî ew kese ye ku dixwaze ji rêya sîstem, yasa û pîvanên tund ên kargêrî ve desthilatdariyê bi ser welat de bike. Di rastî de ew ser bi tu texek weke feodalîzm yan jî kapîtalîzmê nînin, belku borukrasî tenê metoda hejmarek ji desthilatdaran e ku bi hêz û karîna kargêrî, tim desthilata civakê bidest ve girtine.

Li gor nêrîna Marksîstan, borukrasî ne qat e, belku alavek e ji bo texa desthilatdar. Lewra di civaknasiya Komonîstî de, piştî jinavçûna sermayedariyê, îdî çînek nû bi navê borukrasî serî hilnade. Lê îro rojê eva ku bala teorîsiyen û pisporên siyasî bo aliyê xwe kişandiye, serhildana borukrasiyê weke texek nû ku xwediyê desthilatek siyasî ye û eva jî bi belavbûna pirtûka "Texa Nû" a Mîlwan Cîlas, berfirehtir bû.

Her wiha borukrat ji kesên kargêr ên ku li pişt masê rûdinin jî tê gotin ku ji bilî yasayên kargêrî tu armancek din nîn in. Di serdemê berê de ji wan welatên ku li ser hîmê sîstema koyledariyê birêve diçûn, bingehên borukrasiyê bi eşkere dihatin xuyakirin. Hêjayî gotinê ye ku di sedsalên navîn de jî hikûmeta borukrasî li ewropa dihat xuyakirin. Hin caran borukrasî, delîve û keysê ji bo Absoliyonîzm yan jî rehaxwaziyê xweş dike ku bi vî awayî nifûz û desthilata siyasî û aborî a borukratan di civakê de berfireh dibe.

**Çavkanî: (Ferhengî Ramiyarî Nîga) Azad Weledbegî**
**(Danêşnamêyê Siyasî) "Politicial Dictionary"**
**Daryûş Aşorî**

# Xizanî Li Bajarê Makûyê Bêdadê Dike

**Mecîd Cînîkanlû**

Bajarê Makûyê li bakûrê rojavayê Îranê û bakûrê rojhilatê Kurdistanê hilketiye û hevsînorê bakûrê Kurdistanê û Ermenistanê ye. Makû bajarê dawiyê yan bi gotinek din yekemîn bajarê Kurdistana Îranê ye. Bajarê han di warê bazirganiyê de xwediyê derfetek xasmanî ye û ketiye ser rêya Asiya bo Ewropayê**.** Bajarê Makû di warê hebûna çavkaniyên binred têra xwe zengîn e.

Mixabin siyasetên gemar yên Komara Îslamî ya Îranê hemû xelkê Îranê tûşî çarenivîseke tarî û nexweş kiriye û bajarê Makûyê jî digel vê yekê ku xwediyê derfetên baş ji bo karên ajeldarî, werzgarî û bazirganiyê ye, lê mixabin di çarçovaya wan siyasetên gemar yên Komara Îslamî de rastî pirsgirêkên mezin yên aborî, civakî û siyasî hatiye. Ev bajare serbarê vê yekê ku di herêmeke coxrafiyayî ya baş a aborî de hilketiye û rêya bazirganiya bajarê Bazirganê ji bo Ankarayê ye, herwiha axek baş ji bo werzgariyê heye û sînorê Îran û Ermenistanê ye jî, mixabin xelkê wî bajarî tûşî rewşek xirab ya aborî û pîskolojîk hatiye. Bi qasekê ku rûçikê hejarî û xizaniya xelkê vê herêmê li dûr ve xuya dike. Seba hejariya han ku di encama eqliyeta desthilatdarên rejîmê pêk hatiye, zarok, ciwan, kalemêr û kalejin jî neçar in ji bo têrkirina zikê xwe yê birisî, û debara malbatên xwe bişuxilin.

Zarokên bê sûç ku ji temenê 7 saliyê, piraniya wan batî ku herin bo dibistanê û bixwînin, ji bo kargehên çêkirina mafûran tên şandin, karek ku di hemû taxên bajarê Makûyê û gundên derbara bajar de tê xuyakirin. Zarokên ku mehane tenê bi wergirtina 50 hezar tûmenan, bi curekê hewlê didin alîkariya debara malbatên xwe bikin. Zarokên ku pirraniya wan keç in û ji ber hejariya malbatên xwe bo heta heta li xwendigehan bêpar dibin û di kargehên mafûrristinê de tûşî nexweşiyên cur bi cur ên weke: Êşa hestiyan, girêyên li ser dest û pêyan, nexweşiya gurçîlkan, bêhêzbûna çav û... dibin. Serbarê vê yekê ku pirr caran jî di dema karkirinê de bi kêra mafûr çêkirinê çavek xwe kore yan jî siqet dikin. Tu navendek bîmeyê yan kesek ji wan piştevaniyê nake. Xizaniya xelkê Makûyê bi qasekê berçav e ku li têrmînalan, parkan, li tenişt xwendingehan û di kolanên bajarê Makûyê de, gellek kes bi neçarî mijûlê xarzûkiyê ne ku piraniya wan zarok û jin in.



Evane ji hemû kesekê daxwaza hevkariyê dikin. Eger mirov ber bi meydana sewal û malatan a Makûyê biçe, wî çaxî dê xizanî û belengaziya xelkê jê re rontir derkeve holê. Di vê qadê de komek ji kalemêr û ciwan û jin tên dîtin ku li ser dirişqeyan, alavên wek şampo, tîxe, cixare û... difiroşin. Hinek ji wan pîremêran bi zehmet hêza rêçûnê hene, lê ji sibê zû heya şevê bi vê hêviyê ku kesek tiştekê ji wan bikire û ew bikarin pê re debara jiyana xwe bikin, bi neçarî li pişt dirişqeyên xwe radiwestin.

Ji ber xizaniyê, fehşa jî li Makûyê zêde bûye û pirr jinên bextreş ji ber xizaniyên û gellek caran jî ji ber dermankirina zarokên xwe yên nexweş, laşfiroşiyê dikin û mixabin ev yeka di nav civakê de yê bûye tiştekî normal. Jordeçûna hejmara kesên bengdar ên ku madeyên hişber dikişînin û mirovên ku nesaxiya "HIV"yê hene, rewşa civakê zêdetir xirab aloz kiriye. Piştevaniya rejîmê ji kirêgirtiyên xwe bona belavkirina madeyên sirrker, li gişt Makûyê, ev bajarê Kurdistanê ber bi jînosaydek tewaw biriye. Bi awayekê ku madeyên sirrker bi hêsanî û ji rêya kesên girêdayî bi Sipaha Pasdaran û hêzên ewlekariyê ve di nav gel de, bi nirxek erzan tê belavkirin û kesên tûşbûyî bi vê nexweşiyê, madeyên bêhişker bi rehetî ji rêya wan kesan ve bi dest dixin. Rejîm jî çi nabêje wan kesên tûşbûyî bi madeyên hişber, nemaze yên ku belav dikin Eva jî ê bûye sebebê zêdebûna hejariyê û em dikarin bêjim ku di piraniya malbatan de kesek yan çend kes rastî vê nexweşiyê hatine.



Siyasetên şaş û bi armanc yên rejîma Îranê bi vê yekê jî bi dawî nahê û rejîm ji rêya damezirandina binkeyên hêza dijî gelî ya Besîc, dixwaze gel li dijî hev hay bide û bi vê siyasetê ji bilî komkirina xelkê bo aliyê xwe ve bi awayekî nemirovane, bi dana pereyeke kêm di mehê de, ji wan kesan bona sîxorî û tepeserkirina xelkê mifahê distîne.

Meydana kedkarên Makûyê ciyê herî baş ya vê tirajîdyayê ye. Nirxa yek roj karkirina kedkarekê li bajarê Urmiyê 12 heya 15 hezar tûmen e, lê di Meydana kedkarên Makûyê de ev buhaye 5 heya 6 hezar tûmen e. Niha bi hebûna ew giraniya li Îranê ku yek kîlo sêvik 700 tumenî ye, dê çawa malbatek bikare bi wî pereyî bijît. Herwiha xelkê Makûyê ji ber hebûna hejariyê bi neçarî ji bo peydakirina kar diçin bo bajarê Urmiyê. Li meydana kedkarên Makûyê ji bilî pîremêr û jin û ciwanan, zarok jî têne dîtin ku ji bo kar tên bo wê meydanê. Zarok jî bi firotina cixare û kîseyên laylonî, bona debara jiyana malbatên xwe hevkariyê dikin. Tişteke din ku li bajarê Makûyê radeya hejariya xelkê dide kifşê, hebûna hejimarek zaf ji mamosta, xandekar û karmendên hikûmetî ne ku bi Taksî yan otombîlên din mijûlê kirêkêşiyê ne. Kesên han di nav bajêr û herêmên derdora Makûyê de piştî karê îdarî, ji ber giraniya zaf di civakê de, kar dikin. Ev kesane di 24 demjimêran de, tenê çend demjimêran di bêhnvedanê de ne. Hejmarek ji wan kesan xanenişîn in û pêka yasayên hikûmetî divêt hikûmet hemû xercên wan bide û ew kesane piştî 30 sal xizmetkirin bi welatê xwe, divêt çend salên mayî ji temenê xwe bi rihetî derbaz bikin, lê di bin sîbera Komara Îslamî de ew kesane divê hetanî roja mirinê jî kar bikin da ku li birsiyan nemirin. Rewşa han yê bûye sebebê peydabûna nexweşiyên hundurîn û pîskolojîkî di nav civakê de. Bo mînak bûyera gundê **Yarmiqê**, ku bavê malê ji ber pirsgirêkên aborî, 2 zarokên xwe û hevjîna xwe û xwe bi derba kêran kuşt, nimûneyek bona selimandina vê rastiyê.

# KURDÊN HENEKÊ



Heke rêya we bi Başûr ketibe; li Zaxo, li Duhokê an jî li Akrê…di dema piyasekirinê de ji devê dikandarekî, di geryana li nava bajêr ji devê kesekî we ev peyv bihîstibe: Kurdê tirkan!

Ji ber hatûçûna zêde, gellek caran ez bûme 'kurdê tirkan'!

Bi taybetî jî li seytereyan!..*

Xwedê heye; li kîjan seytereyê ez hatibim sekinandin, bi bixêrhatineke gurr û germ, bi zarekî xweş, bi dilekî nerm, bi hestêne birayane hatime pêşwazîkirin.…

Lê… piştî pirsîna asayîşî, vê pirsê di her pirsînê de mahdê min xelandiye:

--Tu xelkê tirka yî, birê?!

Xelkê tirkan?

Ha haaaa…ev ji me kêm bû!

Ev pirsa ku yekser xwe ji hişmendiya perçebûnê dide der, ji we bêt kirin, hûnê jî netengijin?

Niha, ku carekê an du caran rastî vê pirsê bihatima, min ê ne bibira ber dilê xwe, ne jî bikira mijara vê nivîsê!

Lê na; ev sala 6ê ye ku diçim û têm; hişmendî heman hişmendî, feraset heman feresat:

--Tu kurdê tirka yî, bira?

Ev pirs ne bi dilê min be jî rastiyeke xwezayî ya kurdan e.

Yên ku kurd pêşî kirin perçe û bi dû re kirin parî, îro jî li tevî axa wan, dixwazin wan bi xwe jî parî parî daqurtînin!

Û jixwe; ji roja roj de kurd parî parî ne!

Û jixwe; polîtîkaya jênegar ya tirkan e ' pahr ve bik, bik parî, bi dû re daqurtî'!

Û jixwe; pêşiyan gotiye, 'gur bi du pariyan namire'!

Xwediyê 'pariyê mezin' tirk, niha ji nû ve tahma devê xwe xweş dikin û bi dilbijokiyeke keftarî dilê xwe dibijînin pariyê ku bi pariyê xwe û di ser re bi 5 hezar zêrên ingilîzî firotin ingilîzan. Bînin bîra xwe, di meclîsa yekem de Mebûsê Xinisê Yûsiv Ziya, li pêşberî mebûsên wê demê gotibû, ' Gelî birêzan, me şerê rizgariyê bi hev re kir, me dujmin qewirand ji ser vê axê… bo ku em Kerkûk û Mûsilê bidin hinekan'?

Niha nayê bîra min bê kîjan mebûsî mebûsê Xinisê bersivandibû; lê peyvek kêm gotinek zêde, bersiv ev bû: 'Efendîno…em ji şerekî bêaman derketine, gel westiyaye, hêza me ya ku şerekî din bikin nemaye'!

Roja ku wî mebûsê tirk got, 'hêza ma ya şerkirinê nemaye', mixabin li der ve û li hundir, bi hemû hêza xwe, xwe amadeyî şerê kurdan kirin!

Gotina pêşîyan e: Qijkê xwedî bike, da çavên te derîne!'

Tirkên ku du sê kavir, sê çar bizin û çar penç mîhên vijikî di ber wan de li ser pişta hespên piştkurmî hatin wî welatî, û ji tune: begitiyek, dewletek, tacîdariyek …û bi dû re dîsa dewletek ava kirin; di vê 'kişika' ku bi çar kesan têt leyîstin de, li ser serê me bûn lîstikvanê herî jîr.

Herî jîr; lewre hima ku dîtin peykerê Sedam li erdê têt kaşkirin, di lingê lindan de beziyan lîstika nû:

Civîna Dewletên Cîranên Îraqê!

Pêşiyan gotine, civîna çivîkan li ser bênderan'! Ma ji niha de ye ku Kurdistan bêndera tirk û ereb û farisan e?

Lê Xweda zane, tirk dixwazin 'bênderê' ber bi hev de bînin, biedilînin; ji zîwan û zexeliyê pak bikin, qirş û mirşan jê bavêjin…û bibêjin aha ev e 'genimê pak î paqij'! Min di nivîsekê de gotibû, 'bo tirkan kurdê herî baş kurdê mirî ye'!*

Û min pirsek kiribû, ' ew jî nebe'?

Besiva min ev bû, ' Wê gavê kurdê herî baş yê bi tirkan mayî ye'!

Vêca, - yê ku ne gurrî be- bila kumê xwe ji serê xwe der bixe û deyne ber xwe û ji xwe bipirse:

Ezê kurdê xwe bim, an ezê bibim kurdê hinekan?

*cihê lêgerînê/saxtîkirinê.

*http://www.diyarname.com/niviskar.asp?Idx=392

## Jinekê Li Tirgewera Urmiyê Xwe Şewitand

Li gor nûçeya "madnews"ê, heftiya derbazbûyî li devera Tirgewer a Urmiye jinekê temen



50 salî bi navê Gulîzar Heqayiqî, xelkê gundê Sûlki, agir berda laşê xwe û xwe şewitand.

Li gor çavkaniya han, Gulîzar seba hebûna pirsgirêkên malbatî dest daye xwe şewitandinê. Navhatî piştî mana rojek di nexweşxaneya Urmiyê de, seba giraniya birînan canê xwe ji dest da.

Çend rojan berî niha keçeke 16 salî a kurd jî bi navê Xedîce li gundê Zeferan serpila zehabê ku xwendekar bû bi neftê agir berda xwe û mixabin wê jî jiyana xwe ji dest da. Çend rojan berî niha jî jinek bi navê Ekrem li bajarê Kamyaraên xwe kuştiye.

## Dadwerê Doza Hana Ebdî, Agahdarnebûna Xwe Derheq Dûrxistina wê Ragihand

Li gor nûçeya malpera "we change.info"yê, çend rojan berî niha dema ku malbata Hana Ebdî



bona cîbicîkirina kar û barên îdarî, serdana Dadgeha Şoreş a Sine kirin, hatin agahdarkirin ku dadwerê doza wê bi hêceta vê çendê ku ji pirsa dûrxistina Hana Ebdî agahdar nîne, car din doza wê bona pêdeçûnek din şande bo Taya Pêdeçûn a dadgehê. Ragihandina bêagahdarbûna dadwerê dozê, derheq pirsa dûrxistina Hana Ebdî, bûye cihê nigeraniya malbata Hanayê. Hana Ebdî bi buxtana hewildan li dijî ewlehiya neteweyî bi 18 mehan cezayê zîndanê û dûrxistin ji bo girtîgeha Rezen a Hemedanê hatiye mehkûmkirin.

## Îzana Çareserkirina bijîşkî Ji Bo Ronak Sefarzade Nahê Dan

Li gor nûçeya malpera "we change.info"yê, berpirsên zîndanê û dedgeha Sine, serbarê



xirabbûna rewşa tendurustî a Ronak Sefarzade, îzna çareserkirina bijîşkî nadin wê. Ronak Sefarzade, xwendekar û çalaka jinan, endama Civata Jinên Azermêhr a Kurdistanê û Kampayna Yek Milyon Îmzayan, nêzîk bi 15 mehan e ku di girtîgehê de di çarenivîsek ne rohn de ye. Ronak seba îşkenceyên cismî û hundurî û rewşa xirab a zîndanê, tûşî çendîn nexweşiyên cismî û hundurî hatiye û hewceyî çareserkirinek bilez heye. Hewla malbat û parêzerê wê di vê derheqê de hêj bêencam maye. Eva cara çaremîn e ku îzna çûna Ronakê bo layê doktor, tê betalkirin û paşxistin.

# PÊWENDIYÊN JIDIL



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Bi asayî her mirov bi hêvî û daxwaza serkeftin û serfiraziyeke bêhempa dijî û tevdigere. Belê tu kes bîr nabê û zêde nafikire ku di bingeha vê serkeftin û serfiraziyê de bandor û hevhîkariya mirovên din jî heye. Heçku di serkeftin, serfirazî û aramiya her mirovekî/ê de pareke pirr mezin a mirovên din jî heye.

Şanazî û dilxweşî ji bo têşi wateyê an jî awa û şêwaza wê çi dibe bila bibe, aramî û ahengdariya we tu carî bi tena serê xwe (ango bêyî mirovên din) pêk nayê û zêde ne pêkan e jî.

Ji ber ku pêdiviya mirov bi gellek tiştên ku mirov pêşkêşî meriv dikin heye, divê meriv tu carî xwe ji ber vê yekê nede alî. Lewre pêdiviya wan jî bi gellek tiştên ku mirov pêşkêşî wan dike heye. Ev pêwendiya dualî, pêwendiyeke civakî û komelayetî ya bivênevê ye.

Der barê têkilî û danûstandinên navbera mirovan de, kêm zêde herkes xwedî zanîn û agahî ye. Belê ji aliyê sepan(tetb'qkirin) û pêkanîna vê yekê de pirsgirêk heye. Bi hezaran mirov dizanin ku ji mirovên din çi dixwazin. Belê ji destê pozbilindî, qapan û quretiya xwe, vê daxwaza xwe nakin der; ango di dilê xwe de vedişêrin. Ev jî dibe sedema dudilî û durûtiya mirov.

Şaşiya mirov a herî mezin ew e ku mirov dilxweşî û aramiya xwe ji ya mirovên din vediqetîne û cihê dibîne. Belê tastî qet ne wisa ye. Çimkî mirov parçeyekî mirovahiyê û her wiha parçeyek ji civaka xwe ye. Digel serkeftin, kêfxweşî û aramiya mirov, xemgînî, êş û elem û jandariya wî/wê jî girêdayî civaka wî/wê pêk tê. Gava ku mirov hest û hizrên xwe bi civakê parve dike, dilxweşî û şanaziya wî/wê zêde û êş û elemên wî/wê kêmtir dibin.

Divê ev yek baş bête zanîn ku pêwendiyên serkeftî yên mirovan hemû li ser hîmê danûstandinên beramber û domdar didomin. Her mirov pêşî bi mebesta ku kêfxweş bibe, dilxweşiyê bide mirovên din û ji bo dilxweşiyê ji mirovên din hêvî dike. Ev hest û hizrên erênî bandorê li ser kesên din dike û beramberiyeke xurt pêk tîne. Bi vegotineke aşkeratir, hem dilxweşî û aramiya mirov û hem jî xemgînî û diljariya mirov rasterê girêdayî mirovên din (civakê) ye. Pêwendî û tevgerên mirov, bêyî mirovên din ne pêkan e. Pêkan be jî qels e; kêm e; û bêwate ye.

Çima hûn bi pey tiştê ku we hilberandiye nakevin?

Mirov tu car naxwaza ji keda xwe bi avê de berde û ji keda xwe bêpar bimîne. Ked, bastûra pêwendiyên mirov ên ku rasterê bi xwezayê ve girêdayî ne.

Jiyana her mirovî/ê mirovê pêşî kedê dest pê dike. Ked, hilberîna jiyan û cîhana mirov a sereke ye.

Divê di bazara we de her kes bi ser bikeve kardar be; divê tu kes têk neçe û xisarê nebîne.

Di pêwendiyên mirovan de sê azîneyên bingehîn:

**Gefxurî, zordarî û êrîşkirin:**

Ji bo ku hûn bikaribin xwestekên xwe pêk bînin, hûn dikarin hêz, qawet û gexxuriya xwe bi kar bînin.

Kesên ku bi xwe ne ewle ne vê azîneyê bi kar tînin.

**Parsekî, libergerandin û serî tewandin:**

Ji bo ku hûn bigihêjin mexsed û armanca xwe, hûn dikarin li ber mirovên din bigerin û bibin parsekên daxwazên xwe. Kesên ku vê rêgezê bi kar tînin ne bi xwe ewle dibin û ne jî bi yên pêşberî xwe. Kesên ku ruhê koletiyê bi wan re digihê bi vî awayî tevdigerin. Parsekî bê rûmetî ye. Parsekî, libergerandineke serberjêr a yekalî ye. Ked, cehd, xebat û hewldan hemû dûrî parsekiyê ne.

**Wekhevî dad û mafdarî:**

Daxwaza wekhevî, rûmet û serbilindayî ye. Kesên ku vê rêbazê bi kar tînin, hem bi xwe ewle ne, hem ewledariyê didin ên pêşberî xwe û hem jî bi wan ewle dibin. Ev di nav danûstandineke beramber de ne û di têkiliyên xwe de her gav bi ser dikevin.

Ji bo ku hûn bikaribin bi ser bikevin, divê hûn alîkariya kesên din bikin.

Kilîda têkiliyên civakî û danûstandina bi mirovên din re; pêşî, divê mirov baş bizanibe ku ji mirovên din çi dixwaze û çi hêviyê dike. Sira herî mezin a ku mirov dikare bandorê li ser mirovên din bihêle çi ye?

Em ji aliyekî din ve li ezîtiyê/ezperestiyê binihêrin.

Em hemû ezperest in (egoîst in): çar rastîniyên jiyanê

Tiştê ku mirov qure û ezperest dike çi ye?

Kêmanî an jî Jidestçûna xwegiramiyê bi serê xwe pirsgirêk û pevçûn e.

Şêr çawa dibe berxikek?

Ji bo kesê/a ku alîkariya we bike sedemek berbiçav nîşan bidin.

Ji bo têrbûna ku hûn xwe girîng dibînin tu carî çikûziyê nekin.

Heke hûn xwe ji mirovên din girîngtir dihisînin, divê pêşî hûn vê yekê bi mirovên din bidin hisandin.

Ji îro de dest pê bikin ku hûn qîmetê didin mirovên der û dora xwe. Qey ku ew mirov jî qîmetê bidin we.

*Kaniya Helbestan*

# Stranek Kelogirî

**Şilêr – ji Urmiyê**



Tê qab girtin;
Bervajî û lêlijî,
Li ser panahiya xwestekên min.

Ji mêj ve bû
Ez dismisimandim;
Ev hizrika çîrdirîj!

Dimînim
Çav li rê
Di berzexek nehez de;
Li pey,
Sê çar goşeyên
Ji hev qetandî.
Di nava hûrde tîpên bîranînan
Dibim dîn û hartir !
Lê ! bi sond
Naêşînim
Dilê delalîkê xwe
Ku sînga min
Awisê hîn rehên trajîk e!
Îdî nikare biêşe;
Nikare hilweşe;
Ev wêneya bedew.
Himêz dikim
xwezîkên xwe
têm tewandin,
bi hêla rastê !

di baleya pirr bi coşe
bîranînek herî westiyayî
tên ramûsîn hêsirên min
bi evîn,
hêdî hêdî,
bi du lêvên al û xerîb !

Linguicide An Jî Zimankujî

# Geriyanek Di Dîroka Fransayê De Li Ser Yekîtiya Zimên U Yekîtiya Neteweyî

Beşa 1



Îbrahîm Seydo Aydogan

**Linguicide çi ye ?**

Linguicide (linguîsîd tê xwendin) tevgera zimankujiyê ye. Ev peyv ji aliyê "Claude Hagège ve" di pirtûka bi navê "*Halt à la mort de langue*" (bes e ji mirina zimanan re) de hatiye bikaranîn. Weke tevger, linguicide formeke ethnocide an jî « qirkirina etnîkî » ye.

Du awayên lînguîsîdê hene. Bi awayê şexsî, lînguîsîd ew e ku mirov zimanê xwe fêrî zarokên xwe neke û berê wan bide zimanekî din. Heger ev tevgera şexsî bibe tevgereke giştî, hingê gellek ziman, devok û zarava dikarin wenda bibin. Bi vî awayî, mirov bi destê xwe zimanê xwe dikuje.

Wateya wê ya ku di vê nivîsê de me alaqedar dike ew e ku lînguîsîd dikare bibe polîtîkayeke fermî jî. Hingê rê bi qanûn û qedexeyan ve li ber tê girtin ku nifşên nû fêrî zimanekî bibin. Ziman bi vê rêyê ji perwerdehiyê bêpar tê hiştin û zimanekî din li ser axavgerên wî tê ferzkirin. Ev peywendî bi pirranî di navbêra serdest û bindestan de ye ku zimanê bindestan tê qedexekirin.

Her dewlet li gora xwe polîtîkayên cuda li hember zimanên hindikayiyan (minority) bi rê ve dibe. Weke mînak, li Turkiye û Cezayir û Fransa û Amerîkayê, zimanên hindikayiyan ne xwedî statuya fermî ne, lê belê li Fransa û Amerîka'yê qedexeya zimên îroj tuneye. Li Rûsya, Ingilîstan û Moldavyayê, zimanên hindikayiyan xwedî statuya fermî ne û tên paraztin. Lê hin welat jî hene ku pirrzimanî ne, weke Belçîka, Kanada, Pakistan û Belarûsê.

**Destpêk û sedema vê mijarê**

Fransî zimanekî hindi-ewropî ye û weke îtalî, îspanyolî û portekizî dikeve nava beşê zimanên romayî ku bingêha xwe ji zimanê latînî werdigirin. Îroj zimanê fransî di nava 51 welatan de an zimanê fermî an jî yek ji zimanên fermî ye.

Dîroka zimanên ku ji latînî hatine û zarava û devokên van zimanan bi desthilatdariyan û zimanên desthilatdariyan ve têkildar bûye û ji ber vê sedemê jî, di peydabûn û wendabûna zarava û devokên van zimanan de, divê mirov dîroka gelên ku bi wan zimanan dizane jî binirxîne.

Fransa jî welatekî weha ye ku şoreşek lê çêbû ku bandora xwe li seranserê cîhanê kir. Lê vê şoreşê di ber fikra neteweteperestiyê re herweha fikra *zimanê neteweyî* jî bi xwe re anî û ev yek di warê qedera zimanan de mijareke weha ye ku divê balê bikişîne.

Siyaseta zimanî ku di dîroka Fransayê de hate pêkanîn û li cîhanê belav bû, di vî warî de ji bo me jî giringtir dibe. Bersivdayina van pirsên jorê, dikare ji bo rewşa Kurdan jî hin têbîniyên balkêş bide peydakirin ku di nava lêkolîna dîroka zimanan re diyar dibin. Lewre, li seranserê cîhanê ew siyaseta ku em jê re dibêjin « şerrê zimanan » her weke hev bûye û xelkê tim mîna hevdu kiriye.

Ji bo « serkevtina » zimanê fransî ya li hember zarava û zimanên din, dîrokê şahidiya siyaseteke *yekzimanî* û tûndiya li dijî zimanên din kir ku jê re « linguicide » tê gotin û ji serdema navîn û heta demeke nêzîk jî li seranserê cîhanê ew siyaset desthilatdar bû. Lê gelo şerrê zimanan li Fransayê çawa hate kirin ? Fransî bi çi awayî li ser ziman û zaravayên din bû desthilatdar ? Qedera wan ziman û zaravayan çi bû ?

Em ê ji geriyaneke kurt ya dîroka Fransayê de dest pê bikin, lê em ê di vê dîrokê de bêtir bala xwe bidin rewşa zimên û guherînên wî û em ê hewil bidin fahm bikin bê çima şoreşa Fransayê *netewebûyin* û bi *yekîtiya zimanî* ve girêda û çima şerrê zimanan an jî « linguicide » an jî kuştina zimanan dest pê kir.

**Geriyanek li dîroka Fransayê**

Li axa ku îroj em jê re dibêjin Fransa, berî zayînê Gaulî desthilatdar bûn. Desthilatdarî di ber kultur û siyaseta xwe re, tim zimanekî jî bi xwe re tîne û şerrê ku berê di warê leşkerî de dest pê dike, bi dû re dadikeve qada zimên û ji wira jî dadikeve qada çandî. Bi vî awayî, gava ku împaratorê Romanî "Jules Cesar" desthilatdariya xwe li seranserê Ewropayê belav kir, zimanê wî jî li temamê welatên bindest, bû zimanê fermî. Romayî di aliyê sîstema dewletê û bajarvaniyê de xwedî çandeke bipêşketî bûn û vê yekê dikir ku xelkê binecîh jî ji wan û çand û zimanê wan hez bike. Ji xwe hezkirina serdestên xwe li cem hemû milletên bindest weke fenomeneke giştî diyar dibe ku em îroj jî hin tovên wê yên xurt di nava civata xwe de dibînin, herçend serdestiya ku îroj em dibînin bi qada welatan ve bi tenê neyê bisînorkirin jî.

Romayiyan cara yekem rê jî di nava bajaran de ava kirin û herçend ew rê di serî de ji bo artêşa romayî hatibû çêkirin jî, bi vî awayî ev peywendiya zimanî ya di nava herêman de jî hêsantir bû.

Gava ku mirov bibêje « ziman », pêdivî ye ku mirov destnîşan bike ku zimanê nivîskî dikare tim xwe ji zimanê axavtinê cuda bike, lewre ziman di nava axavtinê de bi pêş ve dikeve, diguhere û xwe hêsan dike. Xelkê Gaulî yê ku latînî pejirand, bê guman gellek peyvên bi zimanê xwe jî teva vî zimanî kir û latîniyeke li gora xwe afirand. Ji ber wê jî, latîniya ku xelk pê dipeyivî, ne ew latînî bû ku Cesar û Ciceron pê dipeyivîn û latîniya ku jê re « latîniya klasîk » tê gotin jî bi tenê di nava arîstokrasiyê û di dibistanan de dima. Latînîya devkî ya ku di nava xelkê de dijiya dê bi dû re, piştî belavbûna xrîstiyaniyê, ji bo waazên olî jî bihataya bikaranîn û li hember latîniya klasîk bi ser biketaya.

Piştî têkçûyina Romayiyan ya ji ber « koça gelan » ku di sedsala 4'an de Ewropa da ber xwe, Frankiyên ku ji hêla bakur ve hatin û qewmeke *germanî* bûn, bakurê Fransayê xist bin destê xwe. Di sedsala 5'an de Frankiyan bi sultanê xwe Clovis re xrîstiyanî jî pejirand û ev bû sedema ku ew desthilatdariya xwe xurttir bikin.

Di dîroka cîhanê ya zimanî de rastiyek heye ku ji aliyê hemû çavkaniyan ve tê destnîşankirin û ew jî ew e ku kî desthilatdar bûya zimanê xelkê bi ser yê wî ve diçû. Ji ber ku wê demê li Ewropayê gellek caran desthilatdarî diguherî, hingê bandora gellek zimanan jî di nava zimanekî de tev li hev dibû. Gava ku Frankî hatin Fransayê, zimanê xelkê ji xwe bi vê bûyerê ve guherî. Frankiyan, ji ber nebûna sîstemeke dewletî ya navendî, nikarîbû zimanê xwe yê ku ji malbata germanî bû li ser xelkê bikiraya zimanekî mecbûrî.

Bi tenê di karên fermî de, diviya ku xelkê bi zimanê Frankiyan bizaniya. Sedemeke din jî ew bû ku hejmara frankiyan % 5 bû û vê yekê jî nedihişt ku zimanê xwe li ser xelkê gallo-romayî ferz bikin. Lê dîsa jî ji nava zimanên ku wê demê li Fransayê dihat axavtin, zimanê ku şopa xwe herî zêde hiştiye jî, nemaze di warê peyvan de, zimanê Frankiyan e ku jê re digotin « francique ».

Ji ber wê, ber bi sedsala 8'an ve, di nava zimanên romayî û Germaniyan de, zimanekî din di nava xelkê de peyda bû ku êdî ew ziman ne latînî bû, lê belê ne bi temamî fransiya îroj jî bû. Tê bawerkirin ku fransiya îroj ji wî zimanî hatiye û ji ber vê hindê, ji zimanên wê demê re dibêjin « protofransî ». Lê belê, herêm dûrî hevdu bûn û ev têkelbûyîn di nava 6 qirnan de li her devereke Ewropayê li gora cîh û nêzîkbûyîna zimanên din û danûstendinên bi xelkên din re, bi awayekî din pêk hatibû. Li Fransayê, wê hingê gellek zarava û devokên zimanê gallo-romayî pêk hatibûn ku hejmara wan bi sedan dihate

hejmartin.

Di dema "Charlemagne" de ku ji 760'î heta 814'an dewam kir, serdestiya sîstema latînî dîsa dest pê kir. Charlemagne dixwast desthilatdariya xwe saxlem bike û ji ber wê jî berê arîstokrasiyê û dêrê da latîniya klasîk û wê demê perwerdehiya latînî li dibistanan ferz kir. Lê belê xelkê êdî latînî ji bîr kiribû kesek bi wî zimanî nedipeyivî. Di hin çavkaniyan de tê nivîsandin ku *keşeyên ku waaz bi latînî didan xelkê jî fahm nedikir bê teksta ku wan dixwend behsa çi dikir*. Bê guman vê yekê rê li ber digirt ku xelk bi Incîlê bihatana perwerdekirin. Xelkê û desthilatdaran ji xwe ji hevdu fahm nedikir û gava ku xrîstiyanîzma ku di desthilatdariya wê demê de roleke giring dilîst jî bi latînî bûya, hingê desthilatdariyê peywendiya xwe ji binî ve bi xelkê re dibirrî.

Di dîroka zimanan de tim weha bûye ku qedera zimanan bi fermana desthilatdaran ve hatiye diyarkirin û rewşa zimanê latînî jî kir ku Charlemagne ji ya xwe dakeve û bikaranîna ziman û zaravayên din fermî bike. Ev jî diyar dike ku desthilatdar hercar nikaribûne zimanan tune bikin.

Charlemagne wê demê li seranserê welatê xwe pênc civîn bi perpirsên olî re li dar xistin ku di warê zimên de ya giringtir civîna bajarê Tours'ê bû. Di vê civînê de ku di sala 813'an de li dar ket, biryareke giring di derheqê karên zimanî de jî hate wergirtin.

Li gora biryara wê civînê, ferman hate dayîn ku li dêran êdî axavtin bi zimanê xelkê were kirin ku xelk ji naveroka axavtinan tê bigihije.

Ji ber vê sedemê, mirov dikare bê şik bibêje ku heke desthilatdariya zimanê latînî ya li ser zimanên din kêm bû, di vê yekê de keda dêrê jî heye. Bi xêra kêşeyan ve, wê demê cara yekem zimanê xelkê jî di nivîsê de jî hate bikaranîn. Di sala 813'an de jî yekem teksta bi zimanekî ji derveyî latînî hate nivîsandin ku navê wê « çîroka şehîd Saint Elalie » ye. Hêjayî gotinê ye ku wê demê hê behsa fransî nedibû. Bi tenê behsa « zaravayên zimanê romayî » dibû.

Piştî ku Charlemagne di sala 814'an de mir û kurê wî jî 840'î de mir, neviyên wî di nava xwe de dest bi şerrê desthilatdariyê kir. Asoxî, di sala 842'an de du neviyên wî Charles II û Louisê germanî di nava xwe de li Strasbourgê peymanek pêk anî ku piştgiriya hevdu bikin. Giringiya peymana Strasbourgê ew e ku cara yekem e ku zimanê xelkê di teksteke fermî de jî dihat bikaranîn. Lewra ev peyman him bi romanî yanî fransiya kevn û him jî bi germanî hatibû nivîsandin. Wê demê herdu birayan herweha imperatoriya frankiyan jî di nava xwe de par ve kir. Charles II Fransa stend û Louis jî Almanya stend. Lê belê di nava wan de birayê wan yê sêyem hebû ku bi dû re axa wî jî dê di nava wan de bihataya belavkirin.

**Dengê Rojava**



# Wêjeya Kurdî Ya Devkî: Gera Li Nasnameyekê -1/2

**Besam Mistefa**

Ji nav weşanên Akadîmiyaya Kurdî li Hewlêrê (2008) beşê duyemîn yê pertûka lêkolerê Kurd Elî Cizîrî bi sernavê **"Wêjeya Kurdî ya Devkî (Lêkolîn)"** bi zimanê erebî hate weşandinê. Beşê yekemîn yê vê lêkolînê berî çend salan ji aliyê Kombenda Kawa bo Çanda Kurdî ve hatibû çapkirin.

Pertûk ji bilî diyariyê ji pênc beşên sereke pêktê, ku bi giranî li ser pirsa wêjeya kurdî ya devkî radiwestin. Ev in beşên pertûkê:-Çima wêjeya kurdî ya devkî careke din?"Pêşgotinek teorîk"-Çîroka Kurdî ya efsanewî (çîroka Silêmanê Zindî wek nimûne)-Aliyên seyr di çîroka kurdî ya efsanewî de-Çîroka lawiran-Semyanên komîdiyayê di wêjeya kurdî ya devkî de (pêkenîn wek nimûne)-Wêjeya kurdî ya devkî(nuktegotin wek nimûne)-Aliyê trajîdîk di strangotina kurdî de (girîname û şînname–stranên şînê-wek nimûne)-Diyardeyên şanogeriyê di wêjeya kurdî ya devkî de-Wateya sosologîk ya lavijên kurdî(leqem û nifir)-Kurteparçe ji wêjeya kurdî ya devkî di warê sinnetkirinê de-Aliyê civakî di dastana Zembîl Firoşî de-Gotinek dawî.

**Wêjeya Kurdî ya Devkî**

Resûl Hemzatov carekê gotibû: "Ê ku agirê demançeya xwe berde paşerojê, dê pêşeroj topên xwe bera wî bide". Bê guman, vegera li paşma yan rabirdûyê-bi taybet li keleporê-here giring û pêwîst e ji bona bidestve anîna pêşerojeke tije û rohnîdar.

Ev vegera li rabirdûyê nayê wê wateyê ku bi pîrozî lê were mêzekirin, yan jî weke kêmkirinekê be ji dema niho û pêşerojê re. Berovajî vê çendê, ev veger tê wateya avdana reh û kokan ji bo şînhatin û gulvedana şaxên berz û bilind yên pêşerojê.

Her kesek û milletek xwedî dîrok û rabirdû û pêşeroj e. Paşeroj-çi ya kesan anjî ya gelan-bandora xwe li ser pêşeroja kes/gelan heye. Eger gelek paşeroja xwe bipaşguh bixe-bi aliyên wê yên nêgatîv û pozetîv-dê bandoreke xerab li pêşeroja wî gelî were. Ji xwe eger ev lêveger ji bona her milletekî pêwîst be, eger û pêwîstiya wê ji bona kurdan duqate. Ji ber vê çendê ku kurd wekî gelekî sitembar û zorlêhatî dîrok û kelepora wî hatiye şêwandin, pir bi hewceyî vê pêvegirêdana bi kok û rehan re ye. Weke em dizanin her gelek bê kelepor taybetmendiya xwe ji dest dide, di vî warî da gellek taybetmendiyên kurdan li dirêjahiya dîrok û sitemê ji dest hatine dayin û windakirinê.

Lêkoler Elî Cizîrî di beşê duyemîn yê lêkolîna xwe ya li ser wêjeya kurdî ya devkî de hewil dide gencîneya kelepora kurdî parastî bihêle û ronahiyê bixe ser wate û buhayên di çîrok û destan û stranên kevin û efsaneyên kurdî de, û wan ji windabûnê biparêze. Ev kar deyn û erkeke li ser milê lêkolerekî ku haya xwe ji êş û hêviyên gelê xwe heye.

Edebiyat û folklora kurdî dewlemend e weke edebiyata piraniya gel û netewên rojhilata navîn, ciyê şaristaniyên ruhî û peyxember û olên asmanî û destûrên pêşîn yên mirovayetiyê, ev rojhilata ku pir ji şaristaniyet û heriya xweya pêşîn dûr ketiye û di ortê da maye û nasnameya xwe ya şaristanî bi giştî wendakiriye!

Wêjeya kurdî ya devkî beşekî girîng e di warê wêje û edebiyata kurdî de. Wêjeya devkî zimanê kurdî parast û ruhiyeta mirovê kurd da xuyakirin ku di riya wê de mirov dikare kurdan bi başî nas bike, çi bi aliyên erênî yan neyênî.

Bavê dîrokê-Hîrodot- dibêje: "Ê ku dîrokê nexwîne herdem zarok dimîne". Lê, dîrok bi destê yên ku biserdikevin tête nivîsandinê. Dîroka gelê kurd jî bi piranî bi destê yên din hatiye nivîsînê. Ji ber vê çendê pir giringe wêjeya kurdî ya devkî jinûve û bidestê kurdan bi xwe were nivîsînê, ji bona rastkirina beşekî ji dîroka gelê me. Elî Cizîrî di lêkolîna xwe de dibêje: "Wêjeya kurdî ya devkî pir giranbuha ye, weke jêderekî sereke ji bû jinûve nivîsandina dîroka me ya ku hatiye şêwandin û înkarkirinê".

Dijwariya vekolandina mijara wêjeya kurdî ya devkî ji vê çendê tê ku ev wêje bi tevahî di dilê hin kesên temen mezin û her wext di xetereya mirinê de ye, ev yek ji sedemên giring in ku hiştine Elî Cizîrî bi vî karê xwe rabe ji ber eger hat û ew kes mirin, dê ew wêjeya têr û dewlemend jî ku bi dehên salan parastine û anîne heta roja me ya îro bi wan re "bimire", Cizîrî vê yekê dûpat dike û dibêje: "FAolklora kurdî-tevî dewlemendiya wê ku weke kaniyeke herikî tê pesindan di xetera jibîrbûnê de ye, ji ber mirina kesên ew parastine û di dilên xwe de anîne heta vê rojê, ji ber vê pir giring e ev wêje û folklor were nivîsandin û qeydkirinê". Lêkolîna nivîserî bi ked û westaneke xuya hatiye berhevkirin, û gotareke tenê têr nake ji bona şîrovekirin û danasîna wê bi xwendevanên kurd.

agiri

**Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com**



## Bi Henceta Koça Dawî Ya Mihemednezîr Mistefa, Deftera Siyasî Ya PDKÎ Peyamek Hevxemiyê Ji El Partiyê Re Şand

**Peyama Hevxemiya PDKÎ Ji Bo Partiya Demokrata Kurd Li Sûriyê**

**Rêzdar Serokatiya Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê (El Partî)**

**Tevî silavên birayane!**

Bi kul û kesereke giran ve em hatin agahdarkirin ku Mamosta Mihemednezîr Mistefa, Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê (El Partî) koça dawiyê kiriye.

Bi vê hencetê ve, em tevî bidaxbûna xwe bona lidestçûna vî xebatkarî ku bêguman nebûna wî xesareke mezin e ji bo xebata Kurd bi giştî û nemaze ji bo El Partiyê, em behî û sersaxiya xwe pêşkêşî we yên birêz dikin û hêvî û daxwaza sebr û sebûriyê ji bo hemû aliyekê, bi taybet we yên xebatkar û malbata hêja a Mamosta Mihemednezîr Mistefa dikin û xwe di xem û kovana jidestçûna Mamosta Mihemed de bi şirîk û hevbeş dizanin.



Ruha wî şad be û rêbaza xebata wî tejî rêvîng be.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**24.12.2008**

## CAPK'ê Damezrandina Xwe Ragehand

Roja 22.12.2008'an, '**Civaka Aştî û Pêşveçûna Kurdistanê**' (CAPK), bi derkirina daxuyaniyekê xebata xwe bi fermî ragehand.




Di deqa daxuyaniya wê rêxistina civakî û sivîl de ku hebek ji wê gihîştiye destê 'Agirî', hatiye: "Damezirandina rêxistinek sivîl ku bikare ji aliyekê bibe pira pêwendiya li navbera Kurdên derveyî welêt û yên hundir û ji aliyê din ve jî bi li ber çav girtina şert û mercên îro yên cîhanê û derfet û îmkanên karkirinê bo bersivdana bi lêgerên hatî baskirin, pêwîstiyek dîrokî û erkek îroyîn e. Lewma 'Civaka Aştî û Pêşveçûna Kurdistanê' (CAPK) xebat û çalakiya xwe radigehîne."

Di daxuyaniya avabûna xwe de, CAPK'ê di çend xalên kurt de armancên xwe şîrove kirine.

Hûn dikarin li ser malpera vê rêxistinê agahiyên berfirehtir bixwînin:

**www.capk.eu**
**info@capk.eu**

## Weşana Mehnameya RASAN'ê Hate Rawestandin

Sureya Ezîzpenah xwedî û sernivîskara mehnameya **RASAN**'ê ragehand ku wê bîroya weşanê li bajarê Seqizê ji ber hin pirsgirêkên taybet ên dijwarbûna karê rojnamevaniyê li Rojhilatê Kurdistanê rawestandiye û mehnameya han nahê çapkirin.




Ji ber xebatên rojnamevaniyê, Sureya Ezîzpenah midehekê berî niha li ser doza Şanda Çavdêr a Çapemeniyan ji bo dadgehê hatibû vexwendin, lê bi dana rehîna deh milyon tûmenan serbest hatibû berdan.

## Samoêl Hantîgton Koça Dawiyê Kir

Samoêl Hantîngton, nivîskar û bîrmendê navdar yê siyasî ê Amerîkayê di temenê 81 saliyê de çû ber dilovaniya xwe.



Wî 17 pirtûk di warên siyasî, leşkerî, hikûmet û Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê û pêşdebirina demokrasiyê de weşandine. Hantîngton di sala 1927'an de li "New York"ê ji malbateke penaber a Birîtanyayî hate dinê. Duktoraya zanista siyasî hebû û heta vê dawiyê jî Hantîngtan di zanîngeha Amerîkî a Harward'ê de mamsota bû.

## Ciwanên Kampa Azadî Ya PDKÎ Namîlkeyan Der Dikin

Di Kampa Azadî ya PDKÎ de, ciwanên endam di komîteyên Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistanê, çend namîlkeyan der dikin. Namîlkeyên ku ji aliyên wan ciwanan ve tên weşandin ev in: 'Riskan', "Serinc, Tîşk' û ' Dengî Lawan'.




Di namîlkeyên han de mijar û nivîsarên siyasî, civakî, werzişî, çandî, hunerî û zanistî tên weşandin. namîlke bi du zaravên Kurmancî û Soranî tên berhev û weşandin.